

**Birêz Mistefa Hicrî:**

## “Em hêvîdar in helwêstên kesên mîna Bêşikçî bikare bi ser sîstemên dîktatorên deverê de zal û serketinê bidestve bixe”.

3



Rizgar Namdarî:

“Ez kêfxweş im ku hêla jî di nav PDKÎ de xebata xwe didomînim”.

R:8’ê


Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (205) 05-05-2013 Buha (150) Tûmen


**Jidayîkbûna Pêşewa pîroz be**

**Bi boneya 113’emîn salvegera rojbûna Pêşewa Qazî Mihemed yekemîn serkomarê Kurdistan û bingehdanerê PDKÎ, em rêz ji xebata bê rawestiyan û hewildanên wî stêrka bi çirûsk a esmanê xebata Kurd digrin, û peymanê nû dikin ku heya gihîştina bi armancên bilinde Pêşewa, riya pirr ji şanazî ya wî rêberê leheng ber nedin.**



**Birêz Mistefa Hicrî:**

## Xwendekar Û Ciwanên Me Li Hember Rejîmê De Serî Netevandin



**Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê bo boneya roja xwendekarê Kurd rêûresmek pêk anî.**

Kurdistanmedia: Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê (YXDKÎ), roja 12’ê Banemerê bi beşdariya sekreterê giştî ê PDKÎ, û çend rêkxirawên xwendekarî û hinek mêhvanan rêûresmek birêve bir.

Ew rêûresm bi xwendina sirûda neteweyî ya Ey Reqîb, û ragirtina deqeyekê bêdengî dest pêkir. Piştre rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ, derheq roja xwendekar de axavtinek kir. Birêz Hicrî di axavtina xwe de tevî îşarekirina bi şehîdbûna Îsmaîl Şerîfzade û diyarîkirina vê rojê wek roja Xwendekarê Kurd, got:

“Rejîma Paşatiyê bi şehîdkirina xortên neteweya me dixwast ku pêşiya serhildana tevgeran bigre û zordariyê bi ser xelkê de hakim bike, lê keç û kurên xabatkar ên Kurd morala xwe ji dest nedan û xebata xwe domandin. Niha jî rejîma Îranê bi berdewamî ciwan û xwendekar xistine jêr zextê û mafên wan binpê dike, lê xwendekar û ciwanên netirs ên me serî li hember xwestek û daxwaziyên rayedarên rejîmê de netevandine”.

Doma vê rêûresmê xwendina peyama YXDKÎ, Komeleya Xwendekarên Rojhilat, Yekîtiya Xwendekarên Neteweyî ên Kurd, û peyama hevpar a Yekîtiyên Ciwanan û Jinên Demokrate Kurdistana Îranê, û çend sirûd û nîşandana fîlmeke dekomêntarî derheq roja Xwendekar û kesayetiya Îsmaîl Şerîfzade bû.




## Pirtûka «Çil Sal Xebat Di Riya Azadiyê De» Bi Zimanê Farsî Hate Wergêrandin

Pirtûka “Çil sal xebat di rêya azadiyê de” ku ji aliyê Dr. Qasimlo ve hatiye nivîsandin, ji aliyê Yekîtiya Xwendekarên Demokat ên Kurdistana Îranê ve bo ser zimanê Farsî hate wergêrandin.

Ew pirtûk ji 280 rûpelan pêk hatiye, û bas ji qonaxa pêş serdemê Komara Kurdistan, qonaxa Komara Kurdistan, û piştî Komara Kurdistanê dike.

Şehab Xalidî

# Bêçare Xamineyî

sergotar

Xamineyî ku di wan salan de nîşan dabû ku bona yekdestkirin û nehêlana nakokiyan di navbera aliyên curbcur ên nîzamê, çi hunerek heye, lê niha ew li rewşek pirr aloz û dijwar de dijî. Wî heta kesekî wek Refsencanî, yan ew hemû alîgirên wî ku xwe jêre didan kuştin û niha bûne reformxwaz, yan Ehmedînijad ku niha ji xwe re bûye serokê "baskê Înhirafî" (lader), ji dest dane. ji aliyek din ve, di vê rewşa pirr xirap ya aborî de, Xamineyiyê bêçare dibe hostatiya hilbijartinekê bike ku renge dîsan bê alozî bidawî nebe.

Niha Ehmedînijad êdî ne tenê ew Ehmedîijadê caran nine ku bîr û rayên wî nêzîkî rêber bin, belkû wî bi du sedeman xwe ji rêber dûr xistiye, û dilê wî êşandiye. Ya yekemîn bi vê sedemê ku bikare xelkê bêzar û dijî Xamineyî li dewra xwe kom bike, ya duyemîn jî ew e ku dixwaze weha nîşan bide ku eva Xamineyî wek weliyê Feqîh e ku li hemberî wan hemû tehrîman û xirapiya rewşa aborî de berpirsyar e, ne serkomar.

Xamineyî ku di dema helbijartinên sala 1388'an (2009'an) a serkomariyê de, piştevaniya wî ji Ehmedînijad bi nirxek giran bidawî bibû, niha heke bixwaze dijatiya Ehmedînijad di dawî rojên wî de bike, bê guman wê encam û xisarên pirr mezin bo wî û hitbar û kesayetiya wî wek weliyê feqîh hebe, lewra ew di navbera nal û bizmaran de asê maye.

Ew dibe dîsan li vê rewşa pirr xirap a siyasî û aborî de û di navbera Usulxwazan, reformxwazan û baskê Înhirafî (lader) de, riyekê bo birêveçûnq hilbijartineke bê alozî û bê kêşe peyda bike, û bê guman biryara wan ya bo birêvebirina du hilbijartinên wek ya serkomarî û ya Şorayan her di vê çarçoveyê de ye. Lê Xamineyî ku rojên pirr dijwar derbas dike, vê carê piştgiriyên wî ji kesekî diyarîkirî, dê çi nirxeke giran bo welat hebe, di dema hilbijartinan de ew yek dê eşkere be.

# Peyama Birêz Mistefa Hicrî Bi Boneya Sêyemîn Konferansa Çar Perçeyên Kurdistanê






**Ciwanên welatparêz û xebatkar ên gelê me!**

Em keyfxweş in ku bo boneya pêkanîna sêyemîn konferansa we, pîrozbahiyên xwe ên herî germ pêşkêşî beşdarên di vê konferansê de bikin, û em hêvîdarin ku kongireya we bi serkevtin we kar û erkên xwe birêve bibe û bi encama dilxwaz bigîje, herweha çavnihêrî tê kirin ku konferans hilgirê peyamek zelal û serdemiyane, li ser bingeha xwastek û daxwazên demokratîk û netewî ên gelê Kurd, û yekrêzî û yekparçeyiya ciwanên vê neteweyê li hemû beşên xwe de be.

Beşdarên birêz!

Hûn di demekê de konferasa ciwanên çar perçên Kurdistanê pêk tînin ku rewşa herêm û cîhanê pitir ji caran bi qazancê gelên bindestê dîktatoran li Rojhilata Navîn de ku yek ji wan gelê Kurd e li guhertinê de ye, deshelatên zordar û serberedayî yek li dû yek, bi derba hêza lihevhatî, ya ciwanan tê herifandin û xelkê rizgarbûyî bi xwe qedera xwe diyarî dikin, eva ku di vê navberê de tê berçav, wêzariya ciwanan e ji bindestî û bikaranîna hêz û îradeya asinîn a xwe, bona pêkanîna guherînkarî û bidestvegirtina qedera xwe, lê digel wan guherînkariyan hewce ye ku ku vê rastiyê liber çav bigirin ku deshilata serberdayî a zal bi ser Kurdistanê de, hêj li ser piyê xwe ye, û hêj şiyana xwînrêjandin û tepeserkirina gelê me heye û di halê pêkutîna xwe a dawiyê de ye.

Rejîma dîktator a Sûriyê niha jî bi piştewaniya tevalî a Komara Îslamiya Îranê mijûlî wêrankariya welat û komkujiya xelkê mafxwaz ê welat e, û xûşk û birayên me ên Kurd jî xwediyê beşek ji wan bêbextî û malwêraniyan in. Kempa Domiz li Başûrê Kurdistanê ku konferansa we têde birêve diçe, bûye cihê akincîbûna beşek ji xûşk û birayên me ên awarê ku şahîdên zindî ê vê rastiyê ne.

Li Îranê keç û xortên Kurd tevî hemû lawên welat ku ji mafên xwe ên herî sereke ên jiyanê bêpar in, li vê beşa Kurdistanê lawên Kurd bi kom tên şandin bo girtîgehan, û tên îdamkirin û di bin siya siyaset û hukimraniya rejîmê de di gel nexweşiyên curbicur ên civakî berbirû bûne.

Li Bakûrê Kurdistanê piroseyek dest pê bûye, em bi bi nîgeranî ve çavnihêriya encamên vê pirosê dikin û hêvîdarîn ku encama vê demokrasiyek zaftir bo Turkiyê û rizgariya gelê me di vê beşa Kurdistanê de, ji her cure çewsandinekê be.

Bi vî awayî em dibînin ku civaka me di serdemek hestwyar û çarenivîssaz de ye, lewra hoşyariya gelê me bitaybet lawên xweştevî di vê serdemê de rolek giring di warê diyarîkirina pêşeroja me de dilîze, û her li ser vê esasê jî rola ciwanên xebatkar di vê konferansê de û biryarên we, giringiyek teybet heye.

Em çavnihêrî dikin bi liberçavgirtina wan rastiyan, biryar û pirograma karê konfiransa we, bo pêşerojê rênîşander û alîkar bin.

Di vê derfetê de em bi hewce dizanîn ku silav û rêzên xwe pêşkêşî beşdarên konfransê bikin, û hevderdî û hevxemiya xwe jî pêşkêşî xûşk û birayên xwe ên aware kurdistana Sûriyê, û akincî li Kempa Domiz dikin, û hêviya wê rojê dikin ku êdî Kurd awareyiyê nebîne.

**PDKÎ**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**06. 02. 1392**
**26. 04. 2013**

## Birêz Mistefa Hicrî Bi Bêşikçî Re Hevdîtinek Pêk Anî



**Sekretêrê giştî ê PDKÎ roja Çarşemî 11 banemer hevdîtinek tevî rêzdar "Îsma'îl Bêşikçî" li Bajarê Hewlêrê pêk anî û di vê hevdîtinê de rêz û hurmet ji xebata nivîskarê binavûdengê Turk seba berevaniya navbirî ji mafê berheqe kurdan girt.**

Rêzdar Mistefa Hicrî di vê hevdîtinê de, hêvî xwast ku hizirkirin û helwêstên netirs ên "Îsma'îl Bêşikçî" û ronakbîrên mîna wî hevterîb tevî xebata xebatkarên demokrasîxwazî û mafên mirovan. di deverê de bikare bi ser sîstemên dîktatoran de serkeve û azadî û dadperwerî û avedanî rû li deverê bike û gelên navçeya Rojhilata Navîn jî bikarin wekhev bijîn.

Her di vê pêwendiyê de "Îsma'îl Bêşikçî" jî kêfxweşiya xwe ji vê hevdîtinê nîşan da û tekez li ser boçûnên rêzdar Hicrî di warê pirsa demokrasiyê û bihevre jiyanê û aştîxwaziya netewan di deverê de kir û ronahî êxiste ser wan û xedrên ku ji aliyê welatên dagîrkerê kurdistanê û bi piştgiriya welatên zilhêz di sedsala 20'î de li kurd hate kirin, û bitaybet rola nerênî a welatên Ewropayî di pêwendî tevî teror kirina şehîd Dr. Qasmlo û Dr. Şerefkendîde hat baskirin.

Îsmaîl Bêşikçî:

## Sedsala 20'Ê Kurdan Êş Û Azar Dît, Lê Sedsala 21'An A Kurdan E.




Li Başûrê Kurdistanê li bajarê Hewlêrê li zankoya Selahedîn civîneke ji bo nivîskarê Tirk, dostê Kurdan Îsmaîl Beşikî hate çêkirin. Di civînî de hejmareke mezin ji nivêskar, rewşenbîr û hemwelatiyan amade bûn. eva jêr beşek ji axavtina navbirî ye:

"Di despêka 1941'an li Kurdistana Îranê û li Mehabadê pêvajoya komara kurdistanê dest pêkiribû. Ew tê vê wateyê ku di daviya şerê duyemîn ê cîhanî jî Kurd her li ser piya bûne, û encama wê jî komara Kurdistanê bûye û xwedan xwastekê xwe bûye.

Di wî serdemî de ew dewletên ku yekîtiya mîletan avakirin nexwastin ku xwastekên kurda bibihîsin yan jî Kurda nakarî dengê xwe bigîjinin guhê wan.

Dixwazim basê helwêsta civaka cîhanî li hember Kurdan bikim. Di 16'ê Adara sala 1988'an de Helebçe hate jînosaydkirin. Li hember vê jînosaydê li tu welat û bajareke cîhanê tu helwêstek nehat girtin, tu kesekê li hember ew jînosayda hovane helwêst negirt. Em dibe baş bizanin ku sebeba ew bê helwêstiya welatên cîhanê çi ye. Di heman rojê de welatên Îslamî kombûnekê digirin. di vî konfiransê de 53 endam hebûn û tu kesekê basê vê bûyerê nekiriye.

13'ê Temûza 1989'an, sekreterê giştî ê PDKÎ li Viyenê hat terorkirin. Dr.Qasimlo bona hevdîtinên dîplomatîk ji aliyê hikûmrta Îranê ve hatibû gazîkirin, lê ew dîplomat nabûn û terorîst bûn. Bikûjên Dr.Qasimlo û du hevalên wî karîn ku di demek gellek kurt de hotêla cihê qetlê, bi cih bihêlin û vegerin welatê xwe. Li nawenda Ewrûpayê û li welatekê de ku li warê demokrasî û mirovahiyê de pêşkevtî ye, ev kiryar hate kirin û tu aliyekê jî helwêst nîşan neda. Gellek balkêş e ku li nawenda Ewrûpayê de cînayetek weha bihê encamdan û qatîl bi hêsanî vegerin welatê xwe.

Hevjîna rehmetî Qasimlo xwest ku vê cînayetê bike dozek hiqûqî li Utrîşê, Hêlên Qasimlo ligel Firansayê, Birîtanya û Amerîkayê danûstandin kirin û hewl da ku ev bûyer bibe dozek cezayî, lê tu kesî guh nedayê. Hikûmeta Utrîşê jî li ser vê bûyerê dozek hiqûqî venekir û bi tenê mehkemeyek bê serûber kir û bê encam bi dawî hat.

Çima li hember wan cînayet û qetlan de, ew bê helwêst in? Dibe em baş ji vê yekê fam bikin, heke Viyenê cînayeta Qasimlo pirotesto kiriba, egera vê yekê hebû ku têkiliyên wê ên aborî tevî Îranê têk çûban. Yan jî li hember Sedam Husên de li konfiransa Îslamî de kesê nexwast ku têkiliyên xwe tevî Sedam Husên û dewleta Îraqê têk bide. Divêt em baş bizanin ku sebeba wan bê helwêstiyan li hember wan cînayetên ku derheq Kurdan hatin encam dan çî ye û diyarî bikin û derxin pêşiya xwe.

Ez dixwazim basê bûyerek biçûk jî bo we bikim. Bi baweriya min milyon û nîvek kurd li Almaniyayê hene. Serbarê vê ku ev hemû Kurd li vir dijîn, dewleta Almaniya tu Kurdekê weke Kurd binav nake û nas nake. Hekî Kurdek li Turkiyê çûbe weke Turk, li Îranê weke Fars, li Îraq û Sûriyê jî bo Almaniyayê koç kiribin, weke Ereb tên naskirin.

Çar dewlet hene ku endamê yekîtiya Ewrûpayê ne. Andora, Samarîno, Monako û Lîdêştayn, weke dewlet tev digerin, lê nifûsa wan nagîje yek milyon kesî. Nifûsa her çar dewletan nake 1 ji 5'ê wan kurdan ku bi tenê li welatê Almaniyayê dijîn. Wate 200 hezar kes nifûsa wan e. Bi tenê li Almaniyayê weha niye, belkî li Firansa û Berîtanya û tewahiya welatên Ewrûpayê weha ye. Kurd weke Kurd nahê binav kirin. Hemwlatiyê kîjan dewletê be bi wî tê naskirin.

Sedsala 20'emîn de Kurdan gellek êş kişandin û zehmetî dîtin, lê ez bawerim ku li sedsala 21'an de kurd vê mafên xwe bi dest bixin, û pêşeroja wan ronî dixuye. Lewra sedsala 21'an sedsala Kurdan e".

## 50’mîn civîna Komîteya Mafên aborî, civakî û çandî ya NY bi beşdariya Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê birêve çû



**Komeleya Mafên Mirov a Kurdistana Îranê - Jinêv, weke take aliyê Kurd ku bi awayek fermî endamê komîtê ye, bi pêşkeşkirina raporek beşdarî di civînê de kir.**

Têymûr Elyasî, nûnerê Komeleya Mafê Mirov a Kurdistanê di rapora xwe de pêdagirî li ser binpêkirina konvansiyonên aborî, civakî û çandî ji aliyê Komara Îslamî we kir.

Navbirî çendîn mînak li dor bêşêlkariyên dije gelî ên Komara Îslamî ên peywendîdar bi konvansiyona mafên aborî, civakî û çandî a rêkxirawa neteweyên yekgirtî xistin ber bas. Mînakên weke; Mafê xwendin bi zimanê daykî(madeya 13), mafên koltûrî(madeya15), ferq û cûdahî danan(madeya 2), mafê jiyanek îroyî û guncaw(madeya 11), mafên ewlehiya civakî(madeya 9), mafên dabînkirina rewşa kar(madeya 7), û herweha mafê karkirinê (madeya6).

Heyeta nûneratiya Komara Îslamî bi serperestiya Mihemed Mêhdî Exendzarê jî hewil da ku basa civînê biguherîne. Exendzadê netewa Ereb di Îranê de wek Eşîrt û Behayî jî weke nokerên Îsrîl û bîhaniyan nav bir.

Rapora davî a civînê, di17’ê heyva May ji aliyê komîteya mafên aborî, civakî û koltûrî a rêkxirawa neteweyên yekgirtî ve, wê bê belavkirin.



Îdrîs Sitwet

# Kolberên Kurd Goriyên Çekan





Li Kurditanê de rejîma Îranê bi tu awayekî sermaygozara hewce nekiriye ku gelê kurd li vir li kargehan de bixebit. û niha jî herêma kurdistana Îranê weke herêmeke paşketî tê hesibandin û rewşa weha bûye sedem ku gelê kurd bi neçarî ji bo têrkirina zikê xwe û malbata xwe, hewara xwe bibne ber kolberiyê. Bêkarî li kurdistana Îranê de yek ji mezintirîn arîşeyên xelkê kurd e.

Ji ber ku kurd li kurdistana Îranê ji mafên herî despêkî jî bêpar in û jiyanek dijwar derbaz dikin. Kurdên vê herêmê bo bidestveanîna bijîwa jiyanê, bi neçarî hewara xwe bo jiyana dijwar ya kolbriyê dibin,û mixabin zaf caran dikevine ber gulleyên rejîma xwînmij a komara Îslamî a Îranê, û canê xwe ji dest didin.

Em dikarin bêjin ku kuştina kolberên kurd jî yek ji wan siyastan e ku rejîma komara Îslamî a Îranê ji bo ji navbirina neteweya kurd girtiye pêşiya xwe. Ew herweha, bi tawana qaçaxçîtî, têkdana ewlehiya welat , û dijî şoreşbûnê, kurdan dikujin.

Rayedarên rejîmê derheq kuştina kolberan, (bi bê girtin û dadgehîkirin), xwe li hember tu kesî de berpirsyar nizanin.

Belê di demekê de ku tehrîman bandor li ser rewşa aboriya kurdistana Îranê jî daniye û hejarî li kurdstana Îranê de, di astekê daye ku xelk neçar e ji bo derbazkirina jiyana rojane ya xwe kolberiyê bike, lê hêzên rejîma komara îslamî a Îranê bê vê ku bizanin wan kolberan çi barek heye, wan didin ber gulleyan û canê wan jê distînin. Eva di demekê de ye ku li gor benda “A” madeya 2’ê ya yasaya qaçaxa kalayan, heke buhaya kala kêmtir ji yek milyon tumenî be, bi kalayên qaçax nahê hesibandin û ew kes jî bi tawanbar nahê naskirin. ji gor têdîna 3’ê benda 10 madeya 3’ê ya yasaya bikaranîna çekê ji aliyê hêzên leşkerî ên çekdar ve, “Di dema pêdivî de heke memûrê çekdar tu rê û çare nebin, dikarin çekê bikar bînin, bi mercekê ku dibe daxwaza sekinandinê ji wan bikin, û hek tu bersiv nedan, dibe di qonaxa duyê de, teqê ber bi hewa bikin, û heke her nesekinî, di qonaxa sêyê de teqe ji navtengê berev aliyê xwarê bikin di madeya 7’ê ya bidestvegirtina çekan ya hêzên çekdare rejîma Îranê,hatiye: “Heta bikarin tenê ling û pêyên wan bikne armanc, û hişyar bin ku kiryarên wan nebe sedema mirina wan kesan”.

Lê ew yasaye jî weke gellek ji yasayên din li Îranê de, tenê hibra li ser kaxezê ne, û bi tu awayî nahîn cîbicî kirin.

Em hêvîdarin ku mijara kuştina kolberên kurd, zêdetir di kom û civînên navnetewî de bikeve ber bas û rêyek bo pêşîgirtina ji wan cînayetên rejîmê bihê dîtin.

## Ehmed Turk derheq dabînkirina mefên Kurdan li Turkiyê hişdarî da



**Hevserokê Kongireya Civaka demokratîk û nûnerê Mardînê Ehmed Turk ragehand ku, heke dewleta Turkiyê mafên Kurdan desteber neke, ewê dîsan çekan hilgirin.**

Ehmed Turk derheq pêvajoya aşîtiyê axivî û da zanîn ku, dewlet nabe çareseriya pirsa Kurd tenê di çekdanîna PKK’ê de bibîne.

# Îran Û Azerbaycan

Şehab xalidî





Pêwendiyên di navbera Îran û Azerbaycanê rojbiroj sartir dibin, û ew sariya pêwendiyan zehmet e ku bi wan zûkatiya çareser be, û her du alî dest bi pêwendiyên germ û dostane bikin. Têkçûna pêwendiyên siyasî pirr caran encama pêvajoyên siyasî ên dij bi hev di nav siyaseta navxweyî ya dewletan de ye.

Her di vê çarçoveyê de em dikarin têkçûn yan sartirbûna pêwendiyên di navera Azerbaycana Laîk û Komara Îslamiya Îranê bo wan xalên jêrîn vegerînin:

Piştevanîkirina rejîma Komara Îslamiya Îranê ji girûpên tundrew ên Îslamî ên dijberê dewleta laîk ya Azerbaycanê li nav welatê Azerbaycanê de, û piştevanîkirina ji Ermenistanê ku wek dujminê Azerbaycanê tê hesibandin.

Birêveçûna çend meşên nerazîbûnê ji aliyê Azeriyên vî welatî ve bi dijî tepeseriya Azeriyan ji aliyê rejîma Îranê ve.

Rexnekirin dewleta Azerbaycanê ji aliyê rayedarên rejîma Komara Îslamiya Îranê bi taybetî ji aliyê kesayetiyên mesebî ve, derheq amdekariyê Azerbaycanê ji bo rêvebirina maçên "Yorovîjinê" di sala borî de.

Girtina 22 hemwelatiyên Azerî di Adara sala 2012'an de, ji aliyê berpirsyarên dewleta Azerbaycanê bi tawana ajantiya ji Îranê re.

Kirîna çek û cibelxaneyan ji Îsraîlê bi qasî 1.6 milyard dolarî, û tîcareta navbera her du aliyan ku nêzî 4 milyard dolarî dibe, û herweha Îsraîl duyemîn welatê bikarînerê petrola Azerbaycanê ye. Hêla borriyên Îşklon - Îlat ji giringtirîn hêla veguhastina petrolaKomara Azerbaycanê ye.

Azerbaycan hêla jî wek deshilatek sava tê hesibandin û xwediyê serxwebûnek dîrokî nine, û berdewam xwe ji tehlûkeya êrîşa Ermenistanê de dibîne.

Îran Azerbaycanê ne wek hikumetek serbixwe, belku wek beşek ji xaka xwe dihesibîne, û nêzîkatiya Azerbaynê bi Îsraîlê, Îran pirr nerehet kiriye, lewra Azerbaycan hest bi vê nîgeraniya Îranê kiriye û dike û ditirse ku Îran ji her riyekê mifahê bistîne bo neêminkirina vî welatî.

Di rastî de ew sedemên ku me bas kirin, beşek ji sedemên sartirbûna wan pêwendiyan e, lê mixabin sedema bingehîn ew e ku deshilatdarên vê rejîmê tim û tim serkevtian xwe di şer û tevdanîkariyan de dibînin, lewra em dibînin ku ew rejîma weha îzole bûye, û ew îzolebûna rejîmê û siyasetên serhişkane ên rayedarên vê rejîmê bûye sedema vê ku xelkê bêçare ên welatê me di rewşeke pirr xirap ya aborî de bijîn. Ew rewşa xirap ya aborî êdî gihîştiye astekê ku jiyan ji xelkê welat tehil kiriye û êdî mirov dikare vê rewşa xirap wek karesat bihesibîne.

## Nerîna Lîderan



Elî ekber Salihî

**"Sala pêşiya me li Îranê de, wê sonamiya maddeyên hişber çê be".**



Sadiq Larîcanî

**"Di Îranê de girtiyên siyasî neahtine îdamkirin".**



Nêçîrvan Barzanî

**"Hatina PKK ji bo başûr ne tiştekî biçûk e"**



Yildirim Bînalî

**"Me bi PKK re bazariya yek dewlet, yek milet, yek al û yek welatiyê kir."**

# 11'Ê Banemer Rojbûna Yekemîn Serkomarê Kurdistanê Pîroz Be

Qazî Mihemed kurê Qazî Elî, di 11'ê Banemera 1279'an (Gulana 1900'î), li bajarê Mehabadê li malbatek, welatparêz û xwedî çand de, ji dayîk bû. Qazî Mihemed li temenê 7 saliyê de dest bi xwendinê dike. Ew li ber destê mamostayên mezin ên bajarê Mehabadê piştî xwendina Farsî, perwerdehiya zanistên cur bi cur ên wek Ol,Felsefe, Wêje, û Erebî dibe.

Qazî Mihemed her di ciwaniya we de bi zanistên carr ên serdemê xwe re nasyar bû, û herweha hînî çend zimanên bîhanî jî bû. Ew piştî koça dawiyê a bavê xwe dibe dadwer li bajarê Mehabadê de, û di kar û xebata xwe de pitir giringiyê dide karûbarê xwendinê û handana xelkê bo xwendinê. Qazî Mihemed sala 1941'an dibe berpirsê îdareya Çand û Ewqafa bajarê Mehabadê.

Ew di heyamê berpirsayetiya xwe de yekemîn xwendegehê bo kiçan ava dike. Piştî vê ku "Komeleya Jiyaneweya kurd", tê avakirin, Qazî Mihemed dibe endamê vê komeleyê. Li 25'ê Gelawêja sala 1325 (1946'an) de li ser bingeha rêkxistina Komeleya Jiyaneweya Kurd, Partiya Demokrat ya Kurdistanê tê avakirin û QazîMihemed jî dibe serokê vê partiyê.

Di 2'ê Rêbendana hemen vê salê de, wate piştî 5 mehan yekemîn Komara



demokratîk a Kurdistanê li ser destê Pêşewayê Kurd Qazî Mihemed di Çarçiraya Mehabadê de tê ragehandin, û Qazî Mihemed dibe serkomar.

Navbirî li 14'ê Sermaweza sala 1325'an de Konseya Şer, bi beşdariya deh kesan pêk tîne. Mixabin li 26'ê Sermaweza sala 1325'an (1946'an) bi êrîşa artêşa rêjîma Paşatiyê dawî bi temenê pirr berhem ê Komara Kurdistanê hat, û Pêşwa jî li 10'ê Xakelêweya sala 1326'an (1947'an) de hate bidarvekirin û canê xwe kire goriyê azadî û rizgariya xak û nîştiman.

## Pêvajoya aştiyê bi nêrîna jinên Kurd û Kemalîst



STAR cumartesi

AİHM'E IRKÇILIK BAŞVURUSU

WIKI SKANDAL

BU İLK DEĞİL

Öcalan'a ev hapsi kesinlikle yok

AKÇAKALE'YE TOP MERMİSİ DÜŞTÜ

Şirovekarê bi navûdeng ê Turkiyê, Mistefa kara di gotareke xwe de helwêsta jinên Kurd û Kemalîst li hember pêvajoya aşîtiyê dinirxîne û dibêje ku helwesta jinên Kurd demokratîk û aştîxwazane ye, û li hember de jî helwêsta jinên Kemalîst ku li jêr bandora Parta Gel a Komarîxwaz de kombûne, bi awayek eşkere û bi tirsnaktirîn şêwe dijatiya di gel danûstandinên aşîtiyê ye, û ew banga şer û tunûtîjiyan dikin.

Kara di dirêjiya gotara xwe de dibêje ku Emîne Oklet Tarhan ku yek ji serkirdeyên Parta Gel a Komarîxwaz e, yek ji wan jinan e ku li palrementoya Turkiyê de, bi awayek eşkere pêdagirî li ser hewcehiya şer tevî PKK'ê dike.

## Îran di rîza 191'ê de cih girt



**"Freedom Hause" di rapora xwe ya salane de ku roje 11'ê Banemerê hate belavkirin, eşkere kir ku Komara Îslamî yek ji welatên herî xirab di warê azadiya ragehandinê de ye.**

Di nav 197 welatên cîhanê de, Îran û Kûba di pileya 191'ê û xiraptir ji welatên Turkemenistan, Koreya bakûr, Ozbekistan, Êrître û Bilarûsê ye.

Di vê raporê de welatên cîhanê bi ser sê desteyên Azad, Azad bi awayê navincî, û ne Azad hatine parvekirin. wBi liberçavgirtina vê ku 52 rojnamevan û çalakên Întêrnêtî di girtîgehên Komara Îslamî de ne, Îran weke zîndana herî mezin a rojnamevanan hatiye diyarîkirin.

# Rewşa Zarokên Îdzî Di Îranê De

Arif vêlzî





Nesaxiya Îdz (H.I.V) yek ji wan nesaxiyane ku her di despêka nasîna wê di warê pizîşkî de heya niha, wate di wan 25 salên dawiyê de zêdetir ji her du şerên yekem û duyem ên cîhanî, nêzîk bi 25 milyon qorbanî ji civaka mirovahiyê standiye.

Nexweşiya Îdz temen û regez nas nake û tewahiya texên civakê dike armanca xwe, lewera nawendên pizişkî û cîhanî, cuda ji hewlên tevalî bona rêgirtin ji toşbûna pitir a civaka mirovahiyê bi nesaxiya han, bi merema pêşgirî ji tûşbûna zarokên ku bi sedema tûşbûna dayîkên wan bi vayrosa HIV, Îdzî hatine dinê û piştre dayîka xwe ji dest dane û sêvî mane, roja 8'ê Gulanê wek roja cîhanî a zarokên sêvî ên Îdzî binav kirin.

Niha li gor amarên nû ên sala 2012'an, nêzîk bi 100 hezar kesên Îdzî di Îranê de hene ku bi tenê 25 hezar kes ji wan hatine naskirin. Bêguman zarok jî beşek in ji pêkhateya vê civakê, lewra ji aliyekê bi sedema zêdebûna rêjeya dayîkên tûşbûyî bi HIV û ji aliyê din ve, bi sedema siyasetên aborî û civakî ên rejîma Komara îslamî ku bi tenê zêdebûna kirîzên curbicur ên aborî û civakî û bi jantirkirina jiyana rojane ya xelkê Îranê bi dû xwe re aniye, bûne hokarek bona vê ku zarok bo bidestveanîna xwarina rojê, rû li karên pir zehmet, xwazokî û geriyan di nav cihên pîs biken û bi vî awayî gellek hêsantir bikevin telika Îdzê de.

Eva di demekê de ye ku cuda ji zarokên êtîm ên Îdzî, amar vê yekê eşkere dikin ku %10 ji zarokên kar di Îranê de hilgirê vayrosa HIV ne û rêjeya hejmara tûşbûna wan bi Îdzê, 45 hemberî rêjeya hejmara tûşbûna tewahiya civakê ne.

Di çend rojên borî de parêzgeha Kirmaşanê bi sedema hebûna pitir ji 2797 kesên xwedî Îdz ku %14 ji tûşbûyên seranserî Îranê pêk tîne, weke yek ji 7 parêzgehên pir tehlûke ên Îranê ku zaftirîn rêjeya tûşbûyên Îdzê li xwe digire hate nasîn.

Şarezayên Îdz û karûbarên pizişkî li ser vê baweriyê ne ku, hekî bername û pilanek guncaw û serdemiyane bona rêgirtin ji geşekirina HIV di Îranê de, ku berhema geşekirina bikaranîna madeyên hişber û peywendiyên cinsî ên kontrol nekirî û herweha zêdebûna rêjeya zarokên kar e nehê darêtin, eva cihê nîgeraniyê ye û Îdz gefek micit e bo ser pêşeroja xelkê Îranê bi giştî û zarokan bi taybetî.

## Petrol û gaz li herêma kurdistanê




**Rêveberiya kompaniya "Cênêl Înêrjî" nûçeya vedîtina çavkaniyên nû ên petrolê li nava zewIyên Çiyayê sûr li herêma kurdustanê belav kir.**

Li gor Kompanyaya "Cênêl Înêrjî" berhema wan zewiyan di qonaxa duyemîn a derxistinê de rojane 3200 bermîl û nêzîk bi 804 milyon metira sêca gaza xwezeyî heye.

Can Hêrist ragehand ku wan pilanek taybet ji bo geşepêdana zewiyên petrolê ên Çiyayê sûr hene

## Rojev

### Êrîş bo ser Sûriyê

A: Agirî

Jêderan eşkere kir ku di êrîşa yekemîn de karvanê çek û teqemeniyên Hizbullahê bûn armanc û di êrîşa dûyemîn de jî karvanê mûşekên ku ji Sûriyê ve bo Hizbullahê dihatin şandin bûne armanc balafirên Îsraîlê. Tê xûyakirin ku dewleta Îsraîlê bi merema gehandina çend peyam û haydariyan bo dewlet û girûpên Rojhelata Navîn, ev êrîş kirin ser Sûriyê.

Peyama yekemîn bona kadrên rêberiya Hizbullahê ye derheq vê ku dewleta Îsraîlê pêdagire li ser cezadana Hizbullahê bi sedema bezandina xeta sor a Îsraîlê di Sûriyê de, ku heman şandina mûşek û çekên kmyayî ye.

Peyama dûyemîn a Îsraîlê Beşar Esedê serkomarê Sûriyê ye, û jêre dibêje ku renge Obama pabendê hêla sor nebe, lê em her pabendin û qebûl nakin. jiber ku dewleta Îsraîlê nîgeran e li hember vê ku dewleta Obama li hember bikaranîna çekên kimyayî bêdeng bimîne. Hindek alî di Îsraîlê de li ser vê baweriyê ne ku nabe baweriyê bi hêla sor ya Obama bê kikin

Bêdeng mana Amerîkayê li hember bikaranîna çekên kimyayî di sûriyê de, hitbara leşkiriya wê di herêmê de û bitaybet bal hevpeymanên wê dibe jêr pirsyarê û eva jî cihê nîgeraniya Washigtonê ye. Dewleta Îranê jî nîgeranê vê ye ku êrîşên leşkirî ên Îsraîlê di Sûriyê de, berjewendiyê Îranê kiribe armanc. Çûnkî jinavçûna desthelata Beşar Esed, rêya şandina çekên giran ên Îranê bo Hizbullaha Lubnanê pir zehmet dike. Îran û Sûriye xwediyê rêkevtinnameyên berevanî û leşkirî ne. Elî Ekber Wîlayetî, şêvirmendê karûbarên derve ê rêberê Komara Îslamî ragehand ku êrîşa ser Sûriyê bi wateya êrîşa ser Îranê tê hesibandin, û eva hêla me ya sor e û bi tu awayî em vê yekê qebûl nakin. Herweha Îsraîl hêvî dike ku bi wan riftarên Komara Îslamî derheq Sûriyê de, hevpeymanên din yên wê bigehin vê encamê ku hêla sor ya Îranê xwediyê tu îtibarekê nine û heke di pêşerojê de jî ew bikevin xeterê, wê digel rewşek weha berbirû bin.

**Çavkanî: BBC**

**Rizgar Namdarî Kurê Mihemedemîn, sala 1352'ê li gundê "Mêraw" a ser bi devera Jaweroyê di malbatek hejar de hatiye dinê. Navbirî sala 1989'an hatiye nav refên pêşmergeyên PDKÎ.**





Hevpeyvîn:Faxir Molûdî

Rizgar di temenê du saliyê de dayîka xwe ji dest dide û ji aliyê xwîşka xwe ve tê xwedîkirin. Lê bi sedema feqîrî û hejariyê û herweha nebûna xwendingehê di gund de, nikare dersê bixwîne, lewma her di zarokiya xwe de heya temenê wî digîje 17 saliyê, mijûlî karê cotkariyê dibe.

Rizgar Namdarî derheq nasyariya xwe bi PDK Îranê re weha dibêje; "Bi sedema wê ku binke û baregehên PDK Îranê di gundê me de bûn, min partiya demokrat nas dikir, piştî derketina hêzên partiya demokrat ji gundê me, dema tîmên pêşmergan dihatin devera me, hertim dihatin nava baxên me de, û behna xwe vedidan û civîn ji xelkê gund re pêk dianîn, eva bûn sedem ku ez gellek bi başî PDK Îranê nas bikim".

Rizgar Namdarî dibêje; "Bandora hebûna pêşmerge di navxwe de ji aliyekê û ji aliyê din ve, û zulm û zoriya li ser me û nebûna azadiya bîr û raderbirînê û herweha hebûna hêzên PDK Îranê li devera me weke take partiya ku xebata netewî dimeşîne, bûne sedem ku biryar bidim tevlî refên şoreşa rizgarîxwaziya gelê Kurd li Rojhelata Kurdistanê bibim, lewma di (1989'an) roja 2'ê Gelawêja sala 1368'ê li menteqê tevlî kadr û pêşmergên partiyê bûm û piştî derbazbûna hevyekê vegeriyan baregehên PDK Îranê li Qislanê.

Rizgar li dor roja her nexweş a jiyana xwe weha bi Agiriyê re di axive; "Sala 1371'ê em li binkeyên partiyê de rûniştibûn, ji nişkêve ragehandin ku civîn heye û dibe tevahiya kadr û pêşmerge têde beşdariyê bikin, mixabin di civînê de ragehandin ku terorîstên ser bi Komara Îslamî derbek din ji PDK Îranê xistin û Dr. Se'îd şehîd kirin. Eva rojek pir nexweş bû, jiber ku Dr.Qasimlo û Dr. Se'îd weke bavê kadr û pêşmerge û bavê PDK Îranê bûn.

Di hember de jî Rizgar roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman; "Rojekê hejmarek ji kadr û pêşmergên PDK Îranê ku piraniya wan xelkê devera me û hevalên min bûn, winda bûn, em pir nîgeran bûn, jiber ku gelek aliyan digot ew hatin îdamkirin û gelek aliyan jî digotin ku ew bi dîl hatine girtin, lê piştî derbazbûna 45 rojan, ji nişkêve hevalêm me vegeriyan meqerên xwe. Eva roja herî xweş a jiyana min bû.

Rizgar namdarî derheq jiyana xwe ya hevpar dibêje; "Dema tevlî kadr û pêşmergên PDK Îranê bûm, min zanî ku gellek xizm û kesên me li Başûrê Kurdistanê de hene û min têkiliya wan kir, sala 1378'ê min xwazgînî şandin bo xwastina keçika ku min xwe re destnîşan kiribû, malbata wê razî bûn û piştî 15 rojan, wate roja 3 . 10. 1999'an, min jiyana xwe ya hevpar tevî Payîze Behramî ava kir".

Rizgar Namdarî piştî 24 sal pêşmergatiyê, weha çavnihêriyên xwe li PDK Îranê bas dike; "Ez ji pêşmergatiyê mandî nînim û pir dilxweş im ku hêj di nav partiya demokrat de xebatê didomînim, ez ji kadr û pêşmergên partiyê pir hez dikim û hêvî dikim ku hertim mînak bin û pitir ji caran hest bi berpirsatiyê bikin li hember kar û xebata partiya xwe de.

Rizgar rû li xelkê Kurdistanê dike û gotina xwe ya dawiyê weha tîne ziman; "Peyama min ji bo xelkê Kurdistanê eve ku pitir ji berê baweriyê bi partiya xwe wate PDK Îranê bikin, bi taybet xortên me nekevin telika Komara Îslamî de û hewilê bidin bên û tevlî refên kadr û pêşmergên partiyê bibin û xebata xwe digel birayên xwe ên pêşmerge bidomînin, bona vê ku Kurd jî weke tewahiya gelên cîhanê bi azadî jiyanê bike.

**"Sala 1371'ê li binkeyên me de ragehandin ku civîn heye û dibe tevahiya kadr û pêşmerge têde beşdariyê bikin, mixabin di civînê de ragehandin ku terorîstên ser bi Komara Îslamî derbek din ji PDK Îranê xistin û Dr. Se'îd şehîd kirin. Eva rojek pir nexweş bû, jiber ku Dr.Qasimlo û Dr. Se'îd weke bavê kadr û pêşmerge û bavê PDK Îranê bûn".**

## Li Turkiyê Çi Anîn Serê Jina Kal A Kurd



**Jinek kal a Kurd li Turkiyê bi tawana xwedî kirina Girîlayên PKK'ê, ji aliyê dadgeha wî welatî ve bi zîndana navmalê û girêdana "pêbenda Elektirîkê", hat mehkûmkirin.**

Nefîse Babayîqît, jina 77 salî ya Kurd û xelkê "Kuca Elî"a Turkiyê seba xwedîkirina girîlayên PKK,ê bi 2 sal û 1 mehî zîndana di nav mala xwe û girêdana "pêbenda elektrîkê" bi piyên wê ve, hatiye mehkûm kirin.

jina han heyamê 2 mehane ku pêbenda Berqî bi piyên wê ve pêve hatiye girêdan û hemû rojê tenê li demjimêr 2 heya 3'ê piştî nivro dikare serdana derveyî mal bike.

Di heyamê çendîn sal xebata gelê Kurd li Kurdistana Turkiyê, pitir ji dehan hezar kes di şer û pevçûnên di navbera dewlet û PKK'ê de hatine kuştin û bi hezaran kes jî bê cih û war bûne û sedan gundên Kurdan bi destê dewleta Turk hatine kavilkirin.

Ew xebat niha jî berdewam dike bona bidestveanîna mafê neteweyî ê gelê Kurd li Kurdistana Bakûr.



Eskender Ceiferî

# Evîn Berdewam Dike



"Ho lo lo dujminno! Evîn berdewam dike. "Ew, gotina evîndarekî bû ku hez ji keçekê dikir. Ew çîrok a rast, wusta pêk hat ku rojekê, hevalê xortê me, ew ji bo mala xwe gazî kir. Mêvandarî bû.

Xortê lawik nedizanî çawa serê xwe rake û danî. Dirabû û dirûnşit, şerim dikir. Şerimî, ji çavên wî dibarî. Dema xwîşka hevalê wî dihat nava odê de, xortê me yê delal şerimgîn dima, û serê xwe berdida xwar. Lê diya keçikê dihat û diçû, û jiber wê jî ku kurik, zaf hez ji dayîka hevalê xwe dikir, silav jê kir. Helbet dîsa bi şerim. Roja mêvandariyê bidawî bû û xortoyê me ji mêvandariyê vegeriya.

Tu nebêje keçik dema ku kurik ji mêvaniyê diçe mala xwe, ji dayîk û bavên xwe re dibêje: "Gelo wî çima wusa kir?! Ew qasî şerimgîn û birûmet bû, ku xwarina xwe jî bi başî nexwarî ye. Kurik hêdî hêdî dikete nava dilan de.
Kurik, yek ji dijberên padişa bû û piştî heyamekê ku karên wî li djî hakim, bo zîmamdaran derket kifşê, ji axa xwe reviya. Derbazî cihekê bû ku têde bijî û di heman demê de, ji destên padişa di eman de be.
Wisa jî kir. Lê heyameke zaf jî bi ser de neçû ku rojgar hat û keçik jî kete nava astengiyê de, û şûna jiyana xwe terikand. Îdî hêdî hêdî keçik û kurik, dikarîn hev bibînin. Tu nebêje cara yekemîn, çawan kurik ji xwe re gotiye ku gihîştim miraza dilê xwe, û ezê daxwazê jê bikim ka gelo wê min bi qabîl bizanibe ku em zewacê pêk bînin?! Hevdem keçik jî di dilê xwe de wusa dibêje û ew jî li bal xwe hez ji kurik dike, û kurik jî li bal xwe hez ji keçik dike, lê çi yek ji wan ne haydar in.

Dem derbaz dibe û malbata keçik dizanin ku kurik hez ji keçikê dike. Lê Xwedê kavil bike mala îxanetê. Wan ji keçik re negot û ji bal xwe fikirîn ku emê kum bixin serê kurik. Lewre jî, ji kurik re gotin: "Keça me hez ji te nake".
Ew jî çû. Lê evîn, neqediya. Evîn, proseyek a berdewam e û dom dike. Dûmahîka wê çîrokê jî hêj çê nebû, jiber ku hezlêkeriya wan, dualî bû. Kurik, dilê xwe ji giravê xist, tev geriya heta fersend peyda bibe û ji keçikê re bibêje. Derfeteka baş, ji nişkî ve jê re peyda bû û xortê evîndar, ji keçikê re got. Tu nebê keçik jî, jêre dimire her mîna ku xort, ji keçikê re dimire.

Gelo tiştek ji wê pîroztir heye ku keçik û kurikek ji hev hez bikin û hazir bin ji tev tiştên xwe û malbata xwe derbaz bibin, heta bigihin hev?! Keçik û kurik sûnd ji boy hev xwarin ku ewê bigihin hev, eger bi zordestiya wan jî bûye û çi karê wan pê neketiye ka gelo malbat, razî dibin an na.

Soza wan a dawî ew bû ku razî dibin bila bibin, eger nabin, em, xwe razî ne, û emê herin bi hev re derkevin û ji jiyana xwe re xwedî derkevin. Wisa bû ku evîn dom kir û evîndar, bi hev re şad bûn û gihiştin hev.

# Rojnamevaniya Kurdî Û Xebata Netewî

Dara natiq



Piştî jinavçûna Mîrnişînê Botan û derbiderkirina wan ji aliyê Osmaniyan ve, neviyên Bedirxan Paşa bi merema geşekirina xebata siyasî û çandî ya Kurd û hestkirin bi hewcehiya vê ku rojname baştirîn û bibandortirîn çek e bona jêhrlbirina asta hişyariya siyasî û rewşenbîriya gelê me, li 22'ê Nîsana sala 1898'an de, yekemîn moma temenê rojnamevaniya Kurdî ji aliyî malbata rewşenbîr û şoreşvan a Bedirxan, bi rol û serperestiya kesatiyê diyar ê kurd, Mîr Miqdad Midhed Bedirxan li Qahireya pêtextê Welatê Misrê hat teyîsandin û bi vî awayî yekemîn rojnameya Kurdî bi navê Kurdistan hate çap û belavkirin û bûye hêvênê destpêkirina şoreşek hizrî û rewşenbîrî li nav tevgera azadîxwaziya netewa me û li vê rojê we heya niha, her sal bi rêz û hurmetek taybet ve gelê Kurd bîr ji vê rojnameyê dike û rola welatparêzane ya Bedirxanan bilind dinirxîne.

Rojnameya Kurdistan despêkek dîrokî bû li pêxema hewildan bo zîndîkirin û geşekirina û avakirina hêz û îradeya hevpar a netewî, geşekirina bi zaniyariyên siyasî û civakî û xizmeta kamilbûna hizrî ya civaka Kurdistanê û têkelkirina xebata siyasî û rewşenbîrî weke du têgehên tewawkerê hevdu bona gehiştin bi azadî û xwastekên netewî.

Di heyamê pitir ji sedsalên borî de, rojnamevaniya Kurdî ku hilgirê peyamek siyasî, netewî û rewşenbîrî bûye, di pêvajoya berdewamiya tevgera azadîxwaziya Kurdistanê de, mil bi milê xebata siyasî, bandoreke erênî û karîger li ser hoşyarkirin û bicoşkirina hizra netewî û welatparêziya Kurd daniye û hevdem tirîbûnek bûye bona gehandina dengê mafxwaziya gelê Kurd bo raya giştî ya cîhanê.

Rojnamevan û rewşenbîrên Kurd di pêvajoya xebata netewî di qonaxên dijwar û li jêr zext û givaşên neyarên Kurdan de, cesûrane sîngê xwe kirine mertal û bi qelemên xwe ên dujmin şikên, berdewam in li ronîkirina hizra netewî û riya xebat û pêşvebirina civaka Kurdistanê.



Îro jî ku qonaxa masmîdya û ragehandinê ye, rojnamevaniya Kurd kariye ku bi mifahwergirtina ji îmkanatên serdem, bi avakirina bi dehan kanalên esmanî û çap û belavkirina bi sedan rojname û belavokên taybet û malperên întêrnêtî, vê karwanê berev pêş bibe û weke ragehandinek pirofîşnal û îroyîn, xebata netewî û azadîxwazaneya xwe bidomîne.

## Kampanyayek ji bo ku Kurdî bibe zimanê "google"ê




**Ji bo ku di bernameya ferhenga Google'ê de zimanê 40 mîlyon Kurdî jî cih bigire kampanya hate destpêkirin. Kampanya ku li ser malpera "Imza.la" hatiye destpêkirin, heta niha 10 hezar û 500 îmze kom kiriye.**

Ji bo ku Kurdî jî di nav bernameya ferhenga Google de cih bigre, kampanyeya îmzeyê hatiye destpêkirin. Li cîhanê motora lêgerînê a herî mezin Google, bi gellek zimanên miletan xizmet dide. Armanca kampanya îmzeyê ew e ku, Kurdî jî têkeve nav zimanên Google de.

Kapmanya li ser malpera "Imza.la" hatiye destpêkirin. Heta niha zêdetirî 10 hezar û 500 îmze hatiye berhevkirin. Li ser facebookê jî kampanya ji aliyê 50 hezar kesî ve hatiye amadekirin.

# Gotinên Pêşînan

A: Çiya Mazî



**Dinya ne yek û carek e:**

Tê wateya ku dinya bi dor e. Her tim dinya ji mirov re xerab nakeve û temen dirêj e. Dibe ku mirov rojekê jê sûdeyê wergire û rojekê mirov jî bikene.dema mirovek alîkariya mirov neke mirov dibêje, "dinya ne yek û carek e qey ewê jî li min bihesile".

**Dinya qadî ye, herkes ji xwe razî ye:**

Dinya li herkesî mikur tê. Herçiqas miroj ji xwe razî be jî,dinya bi mirov zane û rastî cûda ye. Wekî kes nabêje "mastê min tirş e" herkes dibêje "ya min baş e".

**Dinya siya darê ye geh li sibê ye geh li êvarê ye:**

Ji ber ku dinya di jiyana mirovan de girîng e û tiştekî ku mirovan ew baş fêm nekiriye,

gotinên li ser dinyê pir in. Herwiha jiyana mirovan her tim bi dinyê re têkili afirandiye û gelek tişt bi baweriyan hatine holê. Ev gotin jî wekî dinya mirovan pir zû diqede û dinya pir zû dizîvire.

**Divê mirov keleka xwe di avê re derbas bike:**

Divê mirov karê xwe zanibe û hinekî jêhatî be da ku mirov li pey hevalan li pey mirovan nemîne, mirov karê xwe bi çi awayî be bimeşîne.



A: Adil Muradî

# ŞARISTANA REWANSER

Rewanser yek ji şaristanên parêzgeha Kirmaşanê ye, ku pêtexta wê Rewanser e. Ew şaristan, ji aliyê bakûr û rojhilat ve di gel parêzgeha Kurdistan, ji aliyê başûr û başûra rojhilat di gel Kirmaşan, ji laiyê başûr û başûra rojhilat di gel Selasa Bawecanî, ji aliyê rojawa di gel Ciwanro, û ji aliyê bakûra rojava di gel Pawe hevsînor e.

Li ser navê Rewanser bîrûrayên curbicur hene. Hinek li ser vê bawerê ne ku ew nav di eslê xwe de "Rûn Ser" bûye. Ew jî bi vê sedemê bûye Rûn Ser, ji ber ku di vê herêmê de kesên ku karê xirap kiriban, xan û axayên wir rûn bi ser serê wan de dadikirin. Lewra navê vê herêmê dibe Rûn Ser, û piştre dibe Rewanser.

Boçûnek din jî di vî warî de heye ku li gor vê, navê wê yê rastî Serab e. Serab çavkaniya Rûbarê Qeresû ye, û avek berdewam heye.

Ji çiyayên wê em dikarin qala van çiyayan bikin: Hûlawir, Mah Zerd, Encîre, Şûr, Taqê Sifîd û Çal Abad

Nifûsa bajarê Rewanserê 47000 kes e ku ji du beşên wek Beşa Nawendî, û Beşa Şaho pêk tê. Herweha ji pênc Dêhistan û 129 gundan pêk tê.

Ji şûnwarên kevnar, ên Rewanserê em dikarin qala wan şûnwaran bikin:

Gûr Dêxme yan Taqê Ferhad, Tepe Mûsayî, Sengê Mezbeh, çiyayê Hûlawir, Şikefta Mirkuliyan, Şikefta Mirdalan, Şikefta Qorî Qela, Seraba Rewanser, Seraba Cawirî.

Hêjayî basê ye ku Şikefta Qorî Qela, li tewaya qareya Asya de, wek meztirîn Şikefta Avî, û li Îranê de jî dirêjtirîn Şikefta Avî ye.

Li Rewanserê de, li her hiktarekê de salê 102 ton berhemên cotkariyê çê dibin, lewra ew der wek mexzena cotkariya parêzgeha Kirmaşanê tê hesibandin.





# Zimanê Kurdî Dikeve Hundirê Saziyên Dewletê

**Li gora agahdariyên ku ji rayedarên AK partiyê hatine wergirtin, amadekarî tê kirin ku bikaranîna zimanê Kurdî li sazî û dezgehên dewletê were asankirin.**

Li gora vê yekê wê kurdên bakurê Kurdistanê bikaribin li nexweşxanê, postexane, banke, saziyên ewlekariya civakî, daîreyên bacê û gelek cihên din bi zimanê kurdî xizmetê wergirin.

Tê ragihandin ku wê wergirtina xizmetê bi zimanê dayikê, di zagona bingehîn ya nû de jî cî bigre û ji bo vê yekê ji niha ve xebatkarên ku bi kurdî dizanin di saziyan de têne bicîhkirin. Her wiha wê li gelek saziyan li kêleka tabloyên Tirkî yên bi zimanê kurdî jî werin daleqandin.

Tê gotin ku wê ev xebat heta dawiya sala 2014 an li temamê Tirkiyê were kirin, lê ewê gavên yekemîn li herêmên kurdan werin avêtin.

AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792

# Ew Jina Ku Berî Hîtlêr Xwarin Dixwar

**Demekê stêrkeke Hitler bû. Gotina wê nedibû du, hema hema ew her tişt bû, gelekî nêzîkî Hîtler bû. Di dema şerê cîhanê yê dûyemîn de, "Margot Woelk", yek ji wan 15 ciwanan bû, ku xwarina Hîtlêr dixwairin, berî ku Hîtlêr xwarinê bixwe, wan ew xwarin dixwarin, ji ber ku Hîtler gelekî ditirsiya ku xwarina wî jehrî be.**

"Margot Woelk" 50 salan ji Hîtlêr re xizmet kir, niha 95 salî ye. Li ber mirinê ye û kesek tune ye ku halê wê bipirse.

Wê ji ajansa AP re got, raste ew li cem Hîtler bû, lê nebû endama Partiya Nazî. Dibêje dema ku li Berlînê eskerên Rûs ew girtin, 14 rojan li ser hev tecawizî wê kirin.





Ferzad Kemnger roja 9'ê Gulana 2010'an ji aliyê rejîma Îranê ve hate bidarvekirin



"Rojekî ez wek "Miharib" binav kirim, û jêve bûn ku ez bi Xwedayê wan re ketime nav şer de, lewra kindirê dadperweriyê! ristin, da ku sibêdehiyekê dawiyê bi jiyana min bînin.

Ji vê rojê pêve ez li benda hukmê xwe me, lê îro ku biryar girtine da ku dawiyê bi jiyana min bînin, min bi hezkirina mirovan, biryar daye ku endamên leşê xwe bidme wan nexweşên ku mirina min dikare jiyanê bide wan.

Herweha dixwazim dilê xwe bi vê hemû evîn û dilovaniya ku têde heye, pêşkeşî zarokekî bikim, êdî ne giring e ku ew zarok li kû be, li rex karûnê, yan li berbiniya çiyayê Sebelan, yan li derdora kewîra rojhilat, yan zarokek be ku ji Zagrosê ve, çavnihêriya derketina rojê dike.

Tenê dixwazim ku dilê yaxî û bê qerar ê min di sîngê zarokekê de lê bixe, ku ji min serhilgirtîtir, hêviyên dema zarokatiya xwe di dema şevê de, bi stêrk û heyvê re bas bike û wan bike şahîd, bona vê ku heke mezin bû şahidek hebe û nekare bixwe îxanetê bi xeyalên zarokatiya xwe bike".

Ferzad Kemanger, li girtîgehê de